Destveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya
Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 136
5'ê Hezîrana 2010
Buha: 150 Tûmen




**Berz û pîroz be Bîranîna şehîdkirina 59 lawên Mehabadî**

27 sal bi ser 12/03/1362`ê Rojî, salroja şehîdkirina 59 ciwanên biceg ên Kurdistanê li bajarê Mehabadê, bi destê rejîma hov a Komara Îslamî a Îranê derbaz dibe û evîna niştiman û axa pîroz her zindî ye û dengê azadîxwazan zelaltir ji hercar digîje guh. Ligel bilindragirtina yad û bîranîna wan şehîdên sorxelat, em peymana wefadariyê jî li gel wan nû dikin.

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

## Kongireya UNPO:

# Rejîma Îranê Divê Dawî Bi Kuştina Xelkê Kurdistan Û Belûçistanê Bîne




### Kongireya 10`mîn a Netewên Bêdewlet (UNPO) birêve çû

Di rojên 27, 28 û 29 ê Banemera 1389`ê Rojî de, Kongireya 10`mîn a "UNPO" bi beşdariya nûnerên netewên Kurd, Belûç û Azerî ên Îranê, li hola Sena ya Îtaliyayê, birêve çû.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, Partiya Gelê Belûçistanê û Saziya Hişyarî a Netewî ya Azerbaycana Başûr, wek nûnerên netewên Bê Dewlet beşdarî di wê Kongireyê de kirin.

Kongire ji aliyê "Marco Perduca" Senatorê Îtaliyayî yê endamê Partiya Demokrat a Îtaliya yê û çalak di warê parastina netewên bê dewlet, hat vekirin. Herweha bernameya wê kongireyê hat pêşkêş kirin û ew bername ji aliyê nûnerên Kurd û Belûç ve hat pesend kirin. Raporek kurd li vê derheqê de li ropel 4`an de.

## Parlemento Ne Cihê Mirovkujan E! Faşîst

R: 2



**Wezîrê Karê Derve Ê Kanadayê:**

## Deselata Îranê Gefa Herî Mezin E Bo Ser Aştî Û Ewlehiya Cîhanê

R: 2



# Peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê ji bo 3'mîn Kongireya Yekêtiya Nîştimanî a Kurdistanê



Birêz Mekteba Siyasî a Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistan!

Li gel rêz û silavan

Bi boneya lidarxistina 3'mîn Kongireya yekîtiya we, em pîrozbahiyên herî germ yên xwe ji we û ji riya we jî ji hemû beşdarên Kongrê dikin.

Rastiyek înkar nekirî ye ku Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê li asta Îraq û Kurdistanê de giranî û pêgehek taybetî heye, lewma em û hemû xelkê Kurdistanê çavnihêr in ku biryar û encamên Kongrê, alîkarek baş bin bo pêşdeçûna zêdetir a demokrasiyê, misoger bûna mafên rewa û yasayî yên gelê kurd û çaksaziyên civakî li Herêma Kurdistanê de.

Em bi hewce dizanin ku bala we bo vê xala giring rakişînin ku guhertinên Kurdistana Îraqê li vê zirûfê di hemû warekê de bandor û tesîra xwe li dever û bi taybet li hemû beşên kurdistanê de dikin, lewma li ser vê esas û bingehê, Kongireya Sêyemîn a Yekêtiyê erkek giring li stû de ye. Em wek dostek dêrîn û kevnar yê we, hêvî dikin ku ev Kongireye li van erkên giring de serkevtî û bersivderê çavnihêriyan be.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**30.05.2010'a Zayînî (09.03.1389'ê Rojî)**

# Washington Post: Tirkiye ji HAMASê jî metirsîdartir e!




Di Rojnama Emerîkî a Washington Post'ê de gotarek balkêş cîh girtiye. Nivîskar David Ignatius di gotara xwe de dibêje îsraîl bi êrîşa keştiya alîkarîyê diyar kiriye ku "Tirkiye dijminek ji HAMAS ê metirsîdartir e ". Nivîskar di nivîsa xwe de dibêje: "Îsraîl bi xurtbûna xwe ya leşkerî dixwaze rîskan bigire û ev gengeşî û alozî jî çend salên dawî de zêde bûye û sedema wê jî guhertina stratejîk ya Rojhelata Navîn e".

Di nivîsê de "Tirkîye şirîkêkî stratejîk û herêmî bû ji bo Îsraîlê, lê niha jî Tirkîye li dijî hejmoniya Îsraîlê meydan dixwîne."
David Ignatius di berdewama nivîsa xwe de wiha dibêje: "Hukumet şaşî dikin lê gava bi aqil bin dikarin ji wan şaşiyan ders bigirin."
David Ignatius li DAVOS ê 'moderatör'ê civîna Erdoğan û Pirêz bû.

# Beşdariya Heyetek PDK Îranê li rê û resma destpêkirina 3'mîn Kongireya Yekêtiya Nîştimanî a Kurdistanê

Roja Sêşemî, 01.06.2010 (11.03.1389)an, Yekêtiya Nîştimanî a Kurdistanê li 35'mîn salvegera avabûna xwe de, 3'mîn Kongireya xwe bi beşdariya hejmarek berbiçav ji nûnerên hêzên siyasî yên biyanî, erebî, Îraqî û Kurdistanî li bajarê Solêmaniyê lidar xist.

Li ser gazî û deweta fermî a Yekêtiya Nîştimanî a Kurdistanê, şandek ji rêveberiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê pêkhatî ji birêzan Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê Partiyê û Mihemed Sahibî, berpirsiyarê bîroya nûneratiya Partiyê li Solêmaniyê, beşdarî li Kongireyê de kirin û peyama pîrozbahiya Deftera Siyasî a Hizbê bi vê boneyê ve pêşkêş kirin.

**Wezîrê Karê Derve Ê Kanadayê:**

## Deselata Îranê Gefa Herî Mezin E Bo Ser Aştî Û Ewlehiya Cîhanê



Wezîrê Karê Derve ê Kanadayê, rejîma Îranê wek hikûmetekê binav kir ku dikare gefan li ewlehiya cîhanê bike.

Li gorî nûçegihaniya fermî a Kanadayê, Wezîrê Karê Derve yê Kanadayê, Larns Kanîn ragihandiye ku rejîma Îslamî a Îranê bi binpêkirina biryarên civaka cîhanî li dor bernameya xwe a navikî, gefekî mezin e bo ser hebûna Îsraîlê.

Navbirî tevî vê yekê ku berevanîkirina ji xwe li hemberî her êrîşekî terorîstî de wek mafekî rewa ê Îsraîlê da zanîn, di hemen demê de jî got ku Kanada mil bi milê Îsraîlê ji bo xebata dijberî terorîzmê dê alîkariya Îsraîlê bike.

Larns Kanîn ragihand ku Kanada û Îsraîlê berjewendiyên hevpar bi hevre hene û hevlbendê hevûdin in.

# Parlemento Ne Cihê Mirovkujan E! Faşîst



Hejmarek ji Parlementerên Ewropayê, roja 01.06.2010'an li avahiya Parlementoyê li Brukselê de bi hilgirtina wêneyên Nidayê di destê xwe de nerazîbûna xwe li hemberî bangkirina Wezîrê Karê Derve ê Îranê, Menûçêhr Mutekî eşkere kirin.

Nûnerên parlementoyê tevî protestokirina tepeseriyên hovane ên xelkê nerazî, bi qêrîna dirûşmên wek “Parlemento ne cihê bikujan e”, û “Nûnerê rejîma faşîst”, seba amadebûna Wezîrê Karê Derve ê Îranê nerazîbûna xwe eşkere kirin.

Nûnerekî parlementoyê, Mutekî şibande Hîtler, ku bi hatina wî, Parlementoyê giraniya xwe ji dest da.

Li derweyî avahiya Parlementoyê de jî gelek ji Îraniyan civînekî nerazîbûnê lidarxistibûn û bi dijî Mutekî dirûşm didan.

# Rojhilatê Kurdistanê Pêşengê Xebata Sivîl



**Azad Kurdî**

Girev û mangirtinên giştî yên nerazîbûna sivîl û aştîxwazane li bajarên Rojhilatê Kurdistanê di deh salên borî de bala hemû azadîxwaz, çalakvan û saziyên mafê mirovan û alîgirên xebata demokratîk û sivîl li Îran û Rojhilata Navîn û heta asta navnetewî jî ber bi aliyê xwe kişandiye.

Di salên borî de li dehan hilkevt û boneyên taybet de gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê çalakiyên cuda yên sivîl û aştîxwazane lidarxistine û bi vê rêyê nerazîbûna xwe bi awayekî demokratîk nîşan daye. Sedema sereke jî ew e ku di sîstemeke îdeolojîk û dîktatorî wek Komara Îslamî ya Îranê de, rêya herî baş a xebat û berxwedan li hemberî desthilatê xebata sivîl û nerazîbûnên giştî yên medenî û aştîxwazane ye. Ji ber ku nirx û bedelên wê xebatê kêmtir in, lewra gelê Kurd û partî û saziyên siyasî û civakî li Rojhilatê Kurdistanê wek rêbazeke nû û bibandor a xebatê dihesibînin.

Di 31 salên borî de bersiva hemû meş, çalakî û xwepêşandaneke sivîl û nerazîbûnên giştî yên xelkê ji aliyê Komara Îslamî bi girtin, îşkence, girtîgeh, darvekirin û... rûbirû bûye. Lê dema çalakiyên sivîl û aştîxwazane giştî û berfireh bin, radeya serkutkirinê tê xwar û dezgeh û sazî û çekdarên hikûmetê jî nikarin beramberî vîn û îrada demokrasîxwazî û mafxwazî ya gelên Îranê bisekine.

Di vê derbarê de Kurdistanê karnameyeke rengîn û serkevtî heye. Ji ber ku Kurd û Kurdistana Îranê herdem pêşeng û çepera çalakiyên sivîl û siyasî bûye, loma niha xebat û çalakiyîn sivîl bi vî awayî bersiv didin û wek destkevtek demokratîk proseya yekgirtin û yekîtiya netewa Kurd bihêztir dike.

Herçiqas heta niha grevên giştî yên nerazîbûnê bi awayekî sîstematîk li Rojhilatê Kurdistanê nehatine cîhgirkirin, lê azmûna 10 salên borî ya lidarxistina çalakiyên sivîl ên nerazîbûnê car bi car ew şêwazê ji xebatê pêşde biriye. Heta niha çalakiyên sivîl ên giştî li bajarên Rojhilatê Kurdistanê li ser daxwaz û bangewaza partî û saziyên siyasî û sivîl hatine li darxistin.




Derket holê ku car bi car pêşketin di vî warî de ê dibin. Mînaka berçav di vê derbarê de greva giştî ya bajarên Rojhilatê Kurdistanê li çend salên borî di salvegera terorkirina rêberê navdar yê Kurd Dr. Ebdulrehman Qasimlo û hevalên wî bû ku bi destê dîplomatên Komara Îslamî li sala 1989an hatin şehîdkirin. Xelkê bajarên Kurdistanê bo şermezarkirina Komara Îslamî ya Îranê derheq terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî di salên borî de çalakiyên cuda lidarxistine. Lê çalakiya sala borî bi wê hilkevtê ji hemû salên berê berfirehtir û berçavtir hat meşandin.

Lê greva giştî ya bajarên Rojhilatê Kurdistanê li pey darvekirina 5 girtiyên siyasî li Îranê di roja 9'ê Gulana 2010'an de, ku 4 jê Kurd bûn, xebata sivîl a Kurdan ber bi pêvajoyeke nû bir. Gelek sedem li pişt çalakiya 13ê Gulanê li bajarên Rojhilatê Kurdistanê bûn; li yên herî giring ev in:

Hişyariya gelê Kurd û sernetewandin li hemberî zilm û zordariya Komara Îslamî û hest bi berpirsyarîkirina gel di hilkevt û pirsên çarenivîssaz de.

Bûyera darvekirina 4 girtiyên siyasî yên Kurd û ew kiryara dijî mirovane ya rayedarên Komara Îslamî wijdana hemû azadîxwazên Kurd hejand, loma mangirtina giştî û daxistina dikan û bazaran û neçûn bo ser îdare, xwendinegh û cihên karkirinê dijkiryara herî kêm ya gel bû ku hat nîşandan.

Çalakî hem ji aliyê rojnamevan û çalakvanên siyasî û sivîl li hundirê Rojhilatê Kurdistanê û hem ji aliyê hemû partiyên siyasî yên Kurd bihev re hat organîzekirin. Yekdengî û yekhelwêstiya partiyên siyasî di vê hilkevtê de bo cara yekemîn gelek berçav bû. Bi vê gava yekgirtî û hevahengkirî derket holê ku bi yekîtî û hevxebatî û yekhelwêstiya partiyên siyasî û gel dikare destkevt û serkevtinên ji wêya mezintir jî bên tomarkirin.

Greva giştî ya 13ê Gulanê li bajarên Rojhilatê Kurdistanê di dem û rewşekê de hat lidarxistin ku li rojên berî û piştî darvekirina Ferzad Kemanger, Ferhad Wekîlî, Şîrîn Elem Hûlî, Elî heyderiyan û Mehdî Îslamiyan hemû bajar û bajarokên Kurdistana Îranê hatibûn mîlîtarîzekirin. Hezaran çekdar û hêzên taybet bo pêşîgirtina nerazîbûn û xwenîşandana şandibûn Kurdistanê. Hêzên ewlekarî û leşkerî yên Komara Îslamî gef ji dikandar û xelkê dikirin daku tevlî grevê nebin, lê hewlên wan hemû bê encam bûn. Giring bû ku di rewşeke wiha de gelê Kurd wiha bi wêrek û netirsane mangirtina giştî rêve birin.

Mangirtina giştî ya 13ê Gulana 2010'an ne çalakiya dawî dibe, azmûnên çend salên borî derxist holê ku roj li pey rojê çalakiyên sivîl li Rojhilatê Kurdistanê berfireh dibin. Ji ber mekanîzmên serkut û qirkirinê ji aliyê Komara Îslamî ew rêya herî baş a xebatê ye.

Di 31 salên borî de Kurdistan herdem pêşengê xebata siyasî û azadîxwaziyê bûye, niha di xebata sivîl û aştîxwazane de jî Kurd li asta Îranê bûne pêşeng. Lê hê rêyek dirêj li pêşberî gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê û partiyên siyasî, saziyên sivîl û çalakvanên siyasî û sivîl heye da ku standardên xebata sivîl û aştîxwazane bên meşandin. Divê xalên lawaz ên azmûnên berê bên bihêzkirin û xalên bihêz jî werin xurttirkirin. Eve jî erkê hemû aliyekê ye.

# Rapora Yekemîn Roja Karê Kongireya Netewe Û Gelên Bê Dewlet (UNPO)

Dehemîn Kongireya asayî a rêxistina netewe û gelên bê dewlet "UNPO", roja 27’ê meha Gulanê bi beşdariya hejmareke zaf ji nûnerên wan rêkxistinên ku li vê dizgeha navnetewî de nûneratiya gelê xwe dikin, li avahiya Senaya Îtalyayê de birêve çû. PDKÎ, Partiya Gelê Belûçistan û Saziya Hişyariya Netewî a Azerbaycana Başûr, ji aliyê gelên Kurd, Belûç û Azerbaycanê ve di vê Kongireyê de beşdarî kirin. Ew Kongireya ku Sê rojan dewam kir, ji aliyê Senator "Marco Perduca" ve hate vekirin. Piştre rojeva vê civînê ji aliyê beşdarbûyan ve ku ji her pênc parzemînên cîhanê ve hatibûn, hat pesendkirin û ji mêhvanên beşdar daxwaz hate kirin ku mesajên xwe pêşkeş bikin.

Di vê beşê de senator "Ramponî" ji aliyê Komîteya Parastina Senaya Îtalyayê ve bas ji giringiya xebata sazî û rêkxistinên endam li UNPO’ê de ji bo parastina aştiya cîhanî û pêşvebirina pêvajoya demokrasiyê li welatên cur bi cur de kir.

Piştre xatûna "Emma bonino" , Cihgira Serokê Senaya Îtalya, di axavtina xwe de giringî da vê kirîza siyasî û aboriya ku niha berbirûyê Yekîtiya Ewropayê bûye û ew pirs girê da bi rolê rêkxirawên ser bi UNPO’ê li pêşvebirina demokrasiyê de. Bi baweriya navbirî qewareyên siyasî û netewî berdewam li halê guherînê de ne, û nebûna serweriya netewî di cîhana îro de, nayê wateya bidawîhatina pêvajoya pêkhatina qewareyên siyasî û netewî yên nû. Li beşeke din ya mesaja mêhvanên kongireyê de, Senator "Pietro Marcenaro" Serokê Komîteya Mafê Mirovan ya Senaya Îtalyayê bas ji mîkanîzma navnetewî ji bo parastina mafê mirovan û hewcehiya bikaranîna rêbaza herî êmin ji bo parastin û pêşvebirina mafên mirov di hemû herêmên cîhanê de kir.

Piştî vê "Ledum Mitee" Serokê UNPO’ê, Sekreterê Giştî "Marco Busdachin" û Desteya Serokatiya Kongreyê rapora kar û çalakiyên xwe pêşkêş kirin, ku piştî gotûbêjeke têr û tejî û hinek têdîtinan hate pesendkirin.

Li beşa bas û gotûbêjên li ser pirsên girêdayî bi rewşa siyasî ya netewe û gelên endam li UNPO’ê de rewşa siyasî a herêman kete ber bas û nîqaşê. Di vê beşê de de parek berçav ji heyetên beşdar, mijarên



xwe xwendin û têde bas ji rewşa welat û gelê xwe kirin. Nûnerê PDKÎ, rêzdar Ebdula Hicab li vê beşê de li ser rewşa Kurdistana Îranê û arîşeyên bingehîn ên neteweya Kurd li Rojhilata Kurdistanê axaftinek kir û bala beşdaran û senatorên Îtalyayî ên mêhvan di Kongireyê de bo aliyê pirsa Kurd rakişand.

Pirsa bidarvekirina xebatkarên Kurd di wan rojên dawiyê de, bi taybetî keça şoreşvan ya Kurd bi navê Şîrîn, îdama Belûçan û herweha qedera 17 çalakên siyasî ku hukmê bidarvekirinê bi ser wan de hatiye sepandin, ji basên navbirî bûn. Herweha tepeserî û binpêkariyên mafê mirovan bi giştî, mîlîtarîzekirina Kurdistanê, avakirina torên terorîstî li welatên derdorê, bombebarankirina sînorên Başûr û Rojhelata Kurdistanê ji aliyê rejîma Îslamiya Îranê ve ji mijarên din bûn ku hatine baskirin.

Di beşeke din ya vê civînê de nûnerên Belûç û Azeriyan jî bas ji rewşa giştî ya herêmên xwe û pirsên pêwendîdar bi mafê kêmaniyan li Îranê de kirin.

**Rapora karê duyemîn roja karê kongreya UNPO’ê**

Li duyemîn roja karê Kongireyê de ku destpêkê li avahiya Senaya Îtalyayê de birêve çû û piştre li avahiya navendî ya Partiya Radîkal a durîkirin ji tundutîjiyê de karê xwe berdewam kir. Di vê beşê de rapora malî ya sala 2008 û 2009 ji aliyê berpirsyarê beşa malî ya UNPO’ê senator "Marco Perduca" ve hate xwandin. Rapora Sekreterê Giştî jî li ser kar û xebatên wan du salên dawî ji aliyê "Marco Busdachin" ve hate xwandin û piştre hate pesendkirin.

Li vê beşê de nûnerên Kurd û Belûç, bi awayekî çalak beşdarî kirin û biryarnameyeke hevpar dane kongreyê, ku bi hevdengiya beşdaran, wek yek ji biryarnameya Kongireyê, hate pesendkirin û weke belgenameya hevpar ya Kongireyê dê bihête bilavkirin. Herweha bi piştevaniya endamên Kurd û Belûç li UNPO’ê li biryarnemeyekî giştî ya kongireyê de ku tenê 5 biryarên sereke bi xwe ve digre, pirsa bidarvekirinan, mîlîtarîzekirina wan herêmên ku akinciyên wan netewên bê dewlet in, û êrîşa çekdarî ya dewletan cih girt û wek du xalên sereke ên biryara dawiyê ya kongireya 10'mîn a UNPO’ê hate pesendkirin.

Li dawiya karên wê rojê ên Kongireyê de Serokê nû, Cihgirê Serok û endamê Desteya Serokatiyê hatine hilbijartin. Ji bo serokatiya kongireyê "Ngawang Chophel" nûnerê "Dalay Lama" li Jinêv û nûnerê Tebet'ê li UNPO’ê de û ji bo Cihgiriya Serok jî, "Lana Agrba", nûnera Komara Abxaziya li




UNPO’ê de hatine hilbijartin.

**Biryarnameya UNPO’ê derheq rewşa gelên Kurd û Belûç li Îranê de**

Bi berçavgirtina vê rastiyê ku Îran welatekî pirnetewî ye, lê tu neteweyekê di wî welatî de derfeta bikaranîna ziman, kultur û nirxên netewî bi awayê fermî nînin.

Bi berçavgirtina vê rastiyê ku piraniya bidarvekirinên siyasî yên Îranê, li Kurdistan û Belûçistanê de birêve diçin, em wan kiryarên dijî mirovî protesto dikin.

Em vê zilma ku li gelên Kurd, Belûç, Turk, Ereb, Turkmen û neteweyên din têne kirin, bi tundî şermezar dikin.

Em mîlîtarîzekirina Herêmên Kurdistan, Belûçistan, herêmên Erebî ên Îranê û bombebaran kirina sînorên herêma Kurdistanê û danîna dîwarên bilind ji bo cuda kirina Belûçên li ser sînorê Îran û Pakistanê protesto dikin.

**Em wek Kongireya Dehemîn a UNPO’ê daxwaz dikin ku:**

Rejîma Îranê herî zû bidarvekirina girtiyên Kurd û Belûç û girtiyên din yên siyasî û girtiyên ku derheq azadiya raderbirînê hatine girtin, bidawî bîne. Herweha dawiyê bi kuştina xelkê sivîl li Kurdistan û Belûçistanê jî bîne.

Rayedarên Îranê mîlîtarîzekirina Kurdistan, Belûçistan û herêmên Erebî bidawî bîne û bombebarana deverên sînorê Îran û Îraqê rabigre.

Rayedarên Îranê pêdaçûnê bi ser siyasetên xwe derheq rewşa pir xirap a mafê mirovan li wan herêmên baskirî de bikin û mafên bingehîn ên gelên Îranê bi fermî nas bikin.

Deselatdarên Îranê herî zû giştî girtiyên siyasî û girtiyên doza raya azad, serbest berdin.

Rejîma Îrabê herî zû giştî îşkenceyan li ser girtiyan hilgire û derfeta pêkanîna dadgehên serbixwe, adîlane û yasayî bide girtiyan û mafê hebûna parêzerên serbixwe ji bo wan bi fermî nas bike.

RONÎ

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

Ebdulla Hicab



# Pênûsa Neteweyî

Di kongireya 7. ya Navenda PENa Kurd (Navenda Kurdî ya Hevgirtina Cîhanî ya Nivîskaran), ku di rojên navbera 21-23 ê Gulanê li bajarê Kunigswinter li Alman birêve çû, gelek li ser têgehên; "Nivîskar û berpirsayetiya neteweyî", "pênûsa bi berpirsayetî", "pênûsa azad" û "ziman û wêjeya neteweyî" bas hate kirin. Di kongireya ku her 3 salan carekê tê li dar xistin, lê ji ber sedemên teknîkî vê carê pitir ji salekê piştî dema asayî pêk hat, nivîskar, wergêr, helbestvan û rojnamevanên Kurd li hemû beşên Kurdistanê û ji diaspora Kurdî beşdar bûn. Şaxên Kurdistanê yên her çar komîteyên PENa Navneteweyî; Komîteya Nivîskarên di Zîndanan de, Komîteya Nivîskarên ji bo Aştiyê, Komîteya Jinên Nivîskar û komîteya mafên Ziman û Wergerandinê rewşa nivîs u pênûsa Kurdî û nivîskarên Kurd li hemû beşên Kurdistanê anî rojevê û naveroka siyasiye Kongireya PENê da xuya kirin.

Gelo hebûna saziyên neteweyî yên hevşêweya PENa Kurd û biryarên ku saziyek weha bide, heya ku dikare li ser rewşa ziman û edebiyatê, wêje û pênûsa neteweyî karîger be? Ji wê bi der niqaşên di navbera nivîskaran de li ser babetên "Nivîskar û berpirsayetiya neteweyî", "pênûsa bi berpirsayetî", "pênûsa azad" û "ziman û wêjeya neteweyî" çiqas karîgerî li ser nasnameya hevbeş u şikil girtina nirx û pîvanên hevbeşe neteweyî heye? û ya dawî û her ew qas jî giring, gelo nivîskarên Kurd bi çi awayî dikarin bi riya pênûsa xwe bibin balyozê nasnameya Kurdî û dengê gelê xwe di asta cîhanî de.

Ziman kilîda bi hev re girêdana neteweyekê ye. Nivîskarên xwedî berpirsayetî dikarin bi pênûsa xwe hê zêdetir wê bi hev re girêdanê xurt bikin. Ji ber ku xurtbûna edebiyata neteweyî di heman demê de piştîwaniya herî xurte ji bo tevgera siyasî. Di rewşa siyasiye îro ya kurdistanê de, bi nebûna sîstema hevbeşe perwerdeya neteweyî û nebûna navendek biryardanê di warê ziman û edebiyatê de, hebûna saziyek weke PENê dikare rola wê sîstema biryardanê bilîze. û ji ber ku PEN saziyek derweyî îdeolojiyek taybet an rêbaza siyasiye yek partiya taybete, pîvanên ku di saziyek weke PENê de cîh digrin û bi wê riyê ve jî di nava nivîskaran û civakê de belav dibin dikarin bibin bingeha nirxên yekgirtî û gulvedna kultûra neteweyî ya hevbeş.

Weke hemû civakên xwedî zimanê hevbeşe perwerde û nivîsandinê, civaka Kurdistanê jî pêwîstî bi pîvan û çarçoveyan ji bo edebiyat û nivîsê heye. Ji bo me yê Kurd bêy hebûna sîstemek neteweyî ji bo gulvedan û bi pêşxistina ziman û nivîsa neteweyî li gor projeyek hevgirtî, pîvan û nirxên hevbeş tenê bi riya nivîs û xuliqandina berhemên edebî ve pêk tên. Lewma rola nivîskarên xwedî berpirsayetî, hem di vebûn û pêşveçûna hizra civakê de û hem jî di diyarî kirina çarçoveyan ji bo wê yekê bingehîn e. Karîgeriya nivîskarên berpirs li ser civak û pêvajoyên rewşenbîrî di civakê de û bi wê re jî girêdayî li ser têkoşîna neteweyî, ji ya partiyên siyasî û heya ji ya hêza herî dînamîke tevgera Kurd dikare kêmtir nebe. Dema nivîskar û rewşenbîrên neteweyekê bi yek biryarê û bi yek helwêsta hevgirtî ji gel û nasnameya xwe xwedî derdikevin, ew yek piştgiriya herî xurt ji bo tevgera siyasî û doza neteweyî ye.

Îro bi saya vebûna dergehên cuda û kanalên zêdeye pêwendî girtinê, derfetek mezin ketiye destê her kesê ku bixwaze wan kanalan ji bo pêşve birina armancên xwe bi kar bîne. Eger bi tenê malperên Înternetê û çawaniya bikaranîna wan li ber çav bigrin, em dibînin ku heya çi radeyekê ev derfet bi qenc û xirab tên bikaranîn. Di nava malperên Kurdî de, dengên di xizmeta tevgera neteweyî de pir in, lê pênûsa derweyî berpirsayetiya neteweyî jî diyare. Dezgehek xwedî bandore weke PENê û hevgirtina nivîskarên Kurdistanî yên xwedî soza neteweyî ku ji pênûs, netewe û nirxên nivîsandinê re girêdayîne dikare di wê barê ve jî xwedî karîgerî be. Ev nayê wê manayê ku nivîskarê xwedî berpirsayetî û girêdayî bi nirxên netewa xwe ve, tenê ev nivîskar e ku di nava PENa Kurd de cî digre. Lê PEN navendeke ku dikare rê û rêbazên nivîsandinê danê û sinûrê bikaranîna pênûsê di xizmet berjewendiyên neteweyî de diyarî bike.

PEN her weha navenda pênûsa azad û bingeha bipêş xistina ziman û wêjeya



neteweî ye. Dema pitir ji 100 nivîskarên Kurd li hemû beşên Kurdistanê bi awayek sîstematîk û berdewam bi hev re li ser wêje, edebiyat û rewşa ziman û nasnameya Kurd di têkiliyê de ne, bêguman encama wan têkiliyan bi xwe karek hêja ye ku dikeve xizmeta bi pêş xistina wêjeya neteweyî.

Xebata PENa Kurd di asta navneteweyî de jî alîkarek xurt ji bo tevgera siyasiye Kurd li her çar beşên Kurdistanê. Ji ber ku di hemû mijarên pêwendîdar bi rewşa siyasiye Kurdistanê de, PEN xwedî helwêste û li ser wê bingehê PENa Navneteweyî jî dike xwedî helwêst. Dema nivîskarên Kurd deriyê navenda pênûsa cîhanî vedikin û bi nivîskarên bi nav û denge yên cîhanê re rûdinên, bêguman mijara serkeye basê, qedexeya li ser zimanê Kurdî û zext û zora li ser rojnamevan, nivîskar û rewşenbîrên Kurd e ku ji ber doza xwe ya neteweyî bi girtin û kuştinê re rû bi rû ne.

Di encama têkoşîna nivîskarên Kurd di nava PENa navneteweyî de bû ku wê saziyê biryar da komîteyên taybet ji bo Nivîskarên di Zîndanan de û Nivîskarên ji bo Aştiyê pêk bîne. Her du komîteyan heya niha li ser hemû binpêkirinên mafên mirovan li Kurdistanê helwêstên cidî girtine û di asta cîhanî de bala siyasetvan û rewşenbîran kêşaye ser doza Kurd û rewşa netewa me.

Lê saziya PENa Kurd ji bo ku bikare hê pitir di asta cîhanî û navxweyî de berpirsayetiya xwe ya neteweyî bi cî bîne, pêwîstî bi tevlî bûna hê zêdetire nivîskar, rojnamevan, şair û xwedî berhemên kurdînivîs heye. Her çiqas ew sazî di hundirê xwe de xurt û bihêz be, ewqas di asta cîhanî de zêdetir dikare destkevtan bi dest bixe. Xurt kirina PENa Kurd, xurt kirina pênûsa xwedî berpirsayetiya neteweyî ye.

## Amerîka Di Hewla Çêkirina Binkeya Esmanî Li Nêzîk Sînorên Îranê De Ye



Nûçegihaniya "Bilumbirg"ê, ji pirojeya Amerîka bo bihêzkirina paygeha esmaniya vî welatî li Başûrê Rojavayê Efxanistanê da zanîn ku navberek 20 km bi Sînorên Îranê heye. Tê zanîn binkeya esmanî ya "Şîndend" ji bajarê Bîrcend a Xurasana Başûr nizîk e.

Nûçegihaniya "Bilumbirg" da zanîn ku ew pirojeya Amerîkayê Komara Îslamî hêrs û gumana wê ku Rojava li hewla zex û givaşan ji riya hêza leşkerî li dijî wane, bihêz bike. Lê berpirsên leşkerî yên Amerîka dibêjên ev binkeye tenê bo parastina çalakiyên leşkerî yên Amerîkayê di Efxanistanê de ye.

Lê ew bernameya Pintagunê hevdeme ligel hevkariyên Amerîkayê bo bi hêzkirina sîstemên dijî mûşekî li Îsraîl û welatên hevgirtî di Xelîc Farsê de.

## Şîrketên Ku Di Parazît Û Fîltir Kirinê De Hevkariya Rejîma Îranê Dikin, Dê Bihên Tehrîmkirin




Gelaleya nû ya Kongireya Amerîkayê li ser bingeha erkdarî û berpirsatiya peymankarên Pintagonê li dor birêve nebirina tîcareta qedexe tevî rejîma Îranê hat pejirandin. Komîteya hêzên çekdar ên Senaya Amerîkayê jî ev gelale pejirand.

Pinil Sina li nirxandina gelaleya xerca berevaniya sala 2011'ê, biryar da ku dewlet raporek 6 mehî li ser çalakiyên bazirganî li warê nift, gaz û Pitroşîmiya Îranê de bide. Wê Komîtê herwiha da zanîn rapora 6 mehiya salê dibe: Şîrketên ku bi hewlên hikûmeta Îranê ji bo fîltêr kirina Înternêtê, bo tevlîhevkirina peywendiyên telefonên destî, manîturîng çalakiyên onlaynê û parazît li ser pêlên radyoyên navnetewî di Îranê de hevkariyê dikin, li xwe de cih bide.

Rojev

# Îsraîl, Tirkiye û Îran



**Selîm Zencîrî**




Êrîşa hêzên Îsraîlê bo ser karwanê gemiyên alîkariyên mirovî bo Xezeyê li roja Duşemî, 31'Gulana 2010'an de bûye rojeva siyasî a cîhanê û li medya û ragihandinan de dengvedan û rengvedanek mezin pêk aniye. Herweha helwest, mehkûmiyet, şermezariyên navnetewî û aloziyên nû di pêwendiyên welatên deverê û bi taybet Tirkiyê bi Îsraîlê re li pey xwe re anî. Her 6 Gemî ku sê ji wan barî û sê yên din jî neferber bûn, roja yekşemiyê ji Qibrisê ve ber bi Xezeyê ve birê ketin ku ji aliyê rêxistina Îslamî ya tirk bi navê weqfa hevkariyên mirovî "Insanî Yardim Weqfi", û girûpên alîgirê Felestînê bi dirûşma "Xezeyê azad bikin" hatibû rêxistin, û nêzîkî 700 kes ji çalakên mafên mirov, rojnamevan û alîgirên Felestiniyan ji 40 welatên cîhanê weke Endonizî, Malizî, Tirkiye û welatên din yên Îslamî li xwe de cih dabûn ku li avên azad (behra Medîteranê) de tûşî pevçûnê bi komandoyên Îsraîlî re hatin û hejmarek ji wan ku piranî turk û li gemiya turk a bi navê Marmare de bûn, hatin kuştin û yên din jî hatin girtin.

Dewleta Îslamiya Tirkiyê ji dema ku li YE'ê de ji ber şert û mercên vê yekîtiyê ku çareseriya pirsa kurd yek ji wan bû nehat wergirtin, bera xwe da welatên erebî û cîran bona wê ku bikare rêberiya deverê bigre dest. Ji hêla din ve jî aboriya xwe ji riya welatên Îsamî ve bihêz bike, çunku Tirkiye niha xwediyê aboriyek herî geş li nav cîranan de ye, dixwaze ji Îranê puanên malî yên zaf bistîne û derfirotina kalayên xwe bi Sûriya û Îraqê û welatên Îsamî jî zêde bike. Lewma hikûmeta Tirkiyê ji riya vê tevgera bi nav xêrxwaz armancek din jî şopand û xwast bal û raya giştî ya cîhanê bo hisara li ser Xezeyê rakişîne.

Lê Îsraîlê jî berê destê wan xwendibû û zû ragihand ku nahêle karwanê wan Keştiyan bê lêgerîn û kuntirol bigihîjin Xezeyê û ger karwan li ser şikandina hisara li ser Xezeyê pêdagir be, dê pêşiya wan bigrin. Çunku Îsraîl ji sala 2006'an ve, (anku piştî serketina Hemasê li hilbijartinan de) Xeze xistiye bin tehrîm û dorpêçên deryayî û erdî, bi vê armancê ku Hemasê pê lawaz û jar bike, pêşiya qaçaxa silah û teqemeniyan bo Hemasê bigre û herweha ji riya givaşan ve Gilad Şalît, leşkerê Îsraîlî ku 4 sale li êxsîriya Hemasê de ye, bide serbest berdan. Lê di vê navberê de tenê xelkê Xezê dihatin çewsandin û ketibûne bin barê hisaran û li navbera Çekoç û Sindanê wate Hemas û Îsraîlê de, nirx û buhayên tawan, tundrewî û serhişkiyên wan didan.

Ew êrîşa Îsraîlê li vê zirûfa hesas a deverê û aloziyên li dîplomasiya wî welatî de, alîkar bû bo goşegîrî û perawêz xistina siyasî û dîplamatîk ya wî welatî di qada navnetewî de, û dikare encamênxirab û pir zirar yên siyasî ji bo Îsraîlê li pey xwe re bîne. Çunku midehek e ku Îsraîl ji hêla navnetwî ve li dor berfireh kirina şehrek û gundên cihûyan ketiye bin zext û givaşan (heta ji hêla nizîktirîn hevalbendê xwe anku Amerîkayê ve) Niha jî ew êrîş dikare têkiliyên Îsraîlê bi heval û hevalbendan re têk bide. Çunku bi vî karî, givaşên li ser xwe xurttir kirin û li hember de jî enî û bereya tundrewên mîna Hemas û Komara Îslamî a Îranê bihêztir û yekgitîtir kir. Çunku niha ev bi baştirîn metod mifaha siyasî, teblîxatî û propagandayî ji vê bûyerê li dijî Îsraîlê dikin.

Li vê navberê de, Tirkiyê qazanc kir û bi vê gava binav xêrxwazane li nav cîhana ereb û bi taybet neyarên Îsraîlê de pêgeha xwe bihêztir kir û li pêşbirkê û kirîza siyasî li du salên borî li navbera xwe û Îsraîlê de biserket. Bi vê çendê jî em dibînin her du hevalên duh, îro bûne dijminê hev û pêwendiyên 62 salî yên xwe zirav kirine û kirîzên dîplomatîk û siyasî li nava xwe de gihandine xirabtirîn rewşê. Pêwendiyên ku yekem derbe li sala 2008'ê, piştî êrîşa Îsarîlê bo ser Xezeyê xwar û sarbûnek eşkere kete nava wan de. Bi taybet Erdoxan li rûniştina Davosê de ji Şîmon Pirês hêrs bû û kiryara Îsraîlê li dijî xelkê Xezeyê mehkûm kir.

Ji hêla din ve jî çend sal bû ku Dewleta Misrê hevdem li gel Îsraîlê, deriyê Refehê bi ser xelkê Xezê de girtibû û hisar xistibû ser Vê deverê, û serbarê zext û givaşên raya giştî ya Ereb û rexneyên tund yên wan û nawendên îsalmî û tundrew ji Misrê, lê dîsan amade nebû ku wî deriyî bi rûyê Xezê de veke. Lê ew êrîşa Îsraîlê, bi awayek otomatîkî, dewleta Misrê serbarê berpirsiyar bûn li hember peyma Usloyê, neçar kir ku dawî bi hisara xwe û girtina derî bîne. Xincî wê jî, mehkûmiyet û givaşên rojava, bi taybet endamên Şêwra Ewlekar bo ser Îsraîlê li dor rakirina tehrîm û hisran jî li pey xwe re anî. Yûnanê jî manovra xwe bi Îsraîlê re paşde xist. Herweha xebatên Amerîkayê jî li dor pirosesa aştiyê bêencam û paşde xist. Ku ev serketina jî bi lîstikvaniya Tirkiyê misoger bû û Tirkiya kire bi qehremanê Ereban. Eve jî li halekê de ye ku baca ku Tirkiye ji bo Filistîniyan dide, li hemberî nirxdayîna Îranê li 30 salên borî de pir hindik e. Li dirûşmdayîn û jiholêrakirina Îsraîlê û înkara Holokastê de eva Ehmedînijad e ku qehreman û navdengek cîhanî heye, lê li serxistina siyaseta Derve, li nav deverê û qazancên aborî de eva Tirkiya û Erdoxan in ku navdeng bidestxistin û alaya wan li nav welatên Erebî û tundrewan de hat hildayîn. Anku xincî zirarên malî û canî û jidestdana hitbar û nifûza xwe di nava xelkê Îranê de, Komara Îslamî pêgeha Îranê jî li asta navnetewî de lawaztir, givaşên siyasî zêdetir û kirîzên dîplomatîk jî xurttir kirin û bi wan gefan û bernameya navikî a xwe, Îran weke gefek mezin bo ser aştî û tenahiya cîhanê da nîşandan û karek kir ku cîhan bi hestiyarî ve bi Îranê re tevbigere.

Lê Tirkiyê ku tu car dirûşma jiholêrakirina Îsraîlê neqîrandiye û heya niha jî pêre li têkiliyê de bûye, çawan li lîstikên siyasî û aborî de xwe pêş dixîne. Bi wateyek din, têçû (hezîne) û bacek ku Komara Îslamî ji ber piştewanîkirin ji tundrewan û haydana wan bo tund û tûjî û dijberiya bi Îsraîlê re bi ser xelkê Xezê de sepand, serbarê serneketin û bêencamiyê, bedbextî û rojreşiyek zêdetir kire nisîbê wan. Lê renge take qazanca ku xincî sûistifadeya siyasî û piropagandayê bo Komara Îslamî hebe, ew e ku bihêvî ye ji riya mifahstandin ji vê kirîzê ve, pêvajoya givaşên li ser xwe li dor pirsa navikî li Şêwra Ewlekar de bi arasteya Îsraîlê ve pal bide heya midehek din xwe ji biryar û cezayên xurt rizgar bike û vê yekîtiya cîhanî li dijî xwe têk bide.

Lê eva jî raste ku li asta naxweyî de, tu ferqekî wan nine û li dor çirmisandin, tepeserî û hovîtiya derheq gelê kurd û gelên din li yek hêla pir tirajîdîk de dimeşin. Niha jî rabûne ser piyan û rondikên Timsahî ji bo filistinîyan dirijînin, qey tu dibêji bi xwe ne wisan in û ji bîr kirine ku çawan hovane ew gelê belengaz serkut dikin û her roj sîngê ciwanên kurd bi nîşange digrin û cinayet û tawanên nû li karnameya tejî zilm û trajîdî yên xwe de tomar dikin, lê ka ew wijdanên hişyar, ka nawendên berpirsiyar, ka helwesta Şêwra Ewlekar û super hêzên çewaşekar, ka parêzerên azadî û azadîxwazên dilbirîndar, ka dirûşm û şermezariyên watedar, ka nerazîbûnên girseyî û ... lê hema qey cîhan kerr, kor û lal e.

# Hevpeyvînek Taybetî Li Gel Birêz Bayram Bozyel, Serokê HAK-PAR'ê

## Hevpeyvîn: Selîm Zencîrî

**Xwendevanên Hêja!**

**Ya ku li jêr de dikeve ber çavên we hêjayan, deqa hevpeyvîna me bi birêz Bayram Bozyel, Serokê Partiya Maf û Azadiyan (HAK-PAR) li Tirkiyê de ye. Rojeva siyasî a Tirkiyê, guhertinên li wî welatî, piroseya Vebûna Demokratîk, pirsa kurd û mijarên têkildar bi wî welatî çarçoveya hevpeyvîna me pêk tînin. Birêz Bozyel bi hûrî bal kişand ser van mijaran û bi zelalî raya xwe û partiya xwe li dor van anî ziman. Li yekemîn pirsira me de ku gelo piştî wan hûrde guhertinan, Paketa AK Partiyê û Reformên Destûrî, niha pirsa kurd li çi nuqteyekê de ye û ber bi çi arasteyekê dimeşe? Wiha bersiv da.**

Bele weke hûn dizanin û raya giştî jî dizane dewleta tirk li ser esas û bingeha înkara gelê kurd hat avakirin û ew siyaset, 80 – 90 sal e ku didome. Lê di vê navberê de dunya guheriye, civata Tirkiyê hatiye guherîn, şert û mercên navxweyî û derveyî hatin guherîn û Tirkiya êdî têgihştiye ku nikare siyaseta sedsala derbasbûyî bidomîne. Ew siyaseta înkar û zulm û zorî û Tekîtiyê têk çû, ji ber wê yekê Tirkiya neçar ma ku di encama guhertinên cîhanî û navxweyî de guhertinan çê bike ber bi reforman ve gavan bawêje. Lewma sala borî partiya deselatdar ya AKP'ê reformek bi navê "Vebûna kurd" destpêkir û paşan navê wê bi "Vebûna Demokratîk" guherandin. Ew jî tiştek baş bû, her çend bi derengî be jî, paketa Destûrî, TRT 6, îtirafa Serok Wezîr û SerokKomar bi pirsa kurd weke pirsa sereke ku divêt were safî kirin, herweha pêwendiyên bi Herêma Kurdistanê û dixwazin balyozxaneya xwe li başûr vekin, ew giştî encamên prosesa nû in.

lê herçiqas ku paket hinekê tenge, em qebûl dikin çunku pirs li esla xwe tewahiya destûrê ye ku berhema kûdetaya 1980 ya artêşê ye û ne meşrû û ne jî li gor yasayên navnetewî ye. Lewre daxwaz gelê kurd û heta demokratên tirk jî eve ku destûr were guhertin ku li gor norm û yasayên navnetewî û daxwaziyên civata Turkiyê û li ser wekheviya kurd u tirk were amade kirin, lê niha Tirkiyê ji vê yekê re neamade ye, lewma AKP di çerçovek teng de ew paket amade kir.

Lê li esla xwe de baweriya me eve ku di vê pirosesê de faktora eslî û girîng, pirsa kurd e û bi vê paketê jî pirsa kurd nahê safî kirin, lê hin mecal û derfet çê dibin ji bo gavên baştir li pêşerojê de. Ji ber ku li paketê de guhertina Dadgehê ku hêzek statûkparêz e û guhertin jê derbas nabin heye û hikûmet li hewildanan de ye ku destê dadweriyê û Arteşê kurt bike. Bi giştî tevî kêmasiyan tiştek pozetîv e û divêt kurd piştgiriya wê bikin.

**Lê kurdan anku Partiya beşdar li Parlementoyê de (BDP) destek nedan reforman. Çima?**

Belê mixabin! em pir xemgîn bûn, destekenedan û helwesat wan erênî nebû û xizmeta pêvajoyê nekir. Tevî rexne û nêrînên xwe, ew bi îrada xwe tevnegeriyan û bi mesaj û gotina Qendîl û Îmraliyê rabûn û çûn pêş. Lê xweziya wan hevalên me jî li Parlementoyê de tevî rexne û kêmasiyan piştgirî bikirana, lê bi baweriya me gelê kurd dê bi başî pêşwaziyê ji referandomê bikin.

**Dixwazim pirsiyarekê bikim û bi zelalî jî bersiva wê bibihîzim. Gelo li rastî de ferqek li navbera AKP'ê û partiyên din yên şoven de bi nisbet pirsa kurd heye yan heman dîtin û nerîna wan heye lê bi rûçikek îroyîn û serdemiyane û xapîner?**



Bersiva ne hêsan e. AK partî ne demokrat e, xwediyê kevneşopiyek demokratîk nine, li eslê xwe de partiyek guhertinxwaz nine, lê şert û merc ew neçar kirine ku xwe biguherîne. Em dibînin ku dewleta milîtarîst tenê zulim ji kurdan nekiriye, ji gelên din û girûpên din yên opîzîsyonê, sosyalîst, çep û îslamiyan jî kiriye. Partiyên îslamî jî hatine girtin, Serokwezîrê niha, berê li zîndanê de bû, du salan berî niha jî dixwastin vê partiyê dabixin, herweha pîlana kûdetayê jî li dijî darêtibûn ku li ser kar hildin û li şûna wê de hikûmetek şoven cihgir bikin. Lewma wan dijberî û nakokiyan, AK partî neçar kirin ku dest bide guhertinan û ger neke, dê bi xwe jî têde biçe. Ji ber wê yekê em her tiştê AKP'ê reş û sipî nabînin û bi wî awayî jî mêze nakin. Niha piratîka AKP'ê heye ku kêrî me tê û divêt em piştgiri bikin, lê yên din û kêmasî jî hene ku divêt em rexne bikin. Divêt siyaseta me rastîn û li xizmeta berjewendiyên kurd de be. Vir de dixwazim bêjim ku AK partî ji bo Tirkiyê jî fersendek e. Ji ber ku cara yekemîn e partiyek sereke û xurt a Tirkiyê dixwaze hin gavan bawêje û ger pirsa kurd jî safî neke û ne bi dilê me jî be, lê nû ye û dîsan baş e. Ji ber ku em weke kurd bi xwe divêt pirsa xwe safî bikin, xwediyê pirsê em in, divêt em derkevin qada xebat û siyaset û giraniya xwe derxin holê û zext bidin ser hikûmet û hêzên din jî ku vê meselê safî bikin.

**Pirsiyarek vir de tê pêş ku hevdem li gel bas kirin ji reform û vebûnê, operasiyon û şer û topbaran jî berdewam in. Ew dufaqtiya AKP û Hikûmetê bo çiye?**

Belê pirsa AKP'ê ew e ku îtiraf dikin ku ew hikûmet in, lê ne îqtidar in. Tirkiyê de gelek hêz hene ku tevî AK partiyê de siyasetek din dimeşînin, wek Artêş û şovenîst ku dixwazin pirose têk biçe. Lewma ji her fersendekê de dixwazin hikûmetê bixin nava acizî û tengasiyê û nîşan bidin ku ew piroses encamên pozetîv dernaxe holê. Lewma ji aliyek pirosesa Vebûnê dimeşîne û daxwaza safîkirinê jî dike, ji aliyê dinê jî zarokan digre ku niha bi hezaran girtî ne, siyasetmedaran digre, operasiyonan jî dimeşîne, lê ew ne nîşana siyasetek rêk û pêk e, ew dudil e, lihevhatî nine ewa jî xisosiaytek AK partiyê ye ku demokrat nine. Ji hêla din vê jî hêzên şoven hene ku astengin li pêşiya wê û neçar bi hin karan dikin. Bi giştî du gavan pêşve dajo û yekê jî paşde dibe.

**Li ser madeya 8 a Destûra Bingehîn ku Tirkiya kiriye bi goristana Partiyên siyasî, xincî wê ku BDP' deng jê re neda, li heman demê de jî nûnerên Ak partiyê jî ger hemûyan deng bidabana, dikarîn vê madeyê ser bixin ku gefek mezin li ser partiya wan bi xwe ye jî. Çima deng jêre nedan?**

Belê AKP jî yekpare û yekdest nine, çend serî ne, hêzên şoven hene û gelek ji wan nedemokrat in, lewma madeya 8'an jî ji bo hêzên şoven pir girîng bû û wan hêzan bi hevkariya Ergenekonê destê xwe dirêjî nav endamên AK partiyê de kirin û nehiştin ew yekdeng bin û deng jêre bidin. Ew piroblem li nav partiya wan de jî heye û bi xwe jî dizanin ku partiya wan li siyasetê de yekreng, yekdeng û bibiryar ninin. Nejadpereset, oldar û demokrat hene û Erdoxan jî bi vê hindê dixwaze balansê biparêze û siyaseta xwe bimeşîne.

**Paket derbasî referandomê bû, helwesta we li referandomê de vê çi be?**

Em hertim dibejin ku ew guhertina nû tiştek baş e, him ji bo kurdan û him jî ji Tirkiyê re. Em piştgiriya wê dikin. Lê ne eva ku her gav başin weke girtina zarokan, girtina siyasetmedaran û operasiyonên dijî PKK, evana nebaş in. Lê bi giştî em baş dibînin û gavên baş, emê destek bidinê. Helwesta me eve ku referandom were qebûl kirin, lê hertim daxwaza me ya esasî eve ku bi tewahî destûrek nû bo Tirkiyê were saz kirin. Me bi xwe jî perspektîv û delarasiyonek amade kir û pêşkêşî wan kir.

**Pêşwaziya wan ji perspektîv û pêşniyazên we?**

Ew jî li vê bawerê de ne ku divêt destûrek nû bê amade kirin û AKP' jî dixwaze û amadeyiya wê jî kiribûn. Lê piştî ku hewil hat dayîn AKP bihê daxistin, ew hinek paşde kişiya û dibêjin niha parlemento ji bo wan guhertinan nemosaid û ne amade ye. Lê eva gava yekemîn e û piştî hilbijartinê dixwazin destûrek nû pêşkêş bikin

**EW guhertina ku vê dawiyê li Partiya CHP'ê de li encama kirîzên navxweyî yên wê de çê bûye û niha rêveberiyek nû hene! gelo bi raya we ew rêveberiya nû çi tesîrek dê li ser pirsa kurd bi nêrînek berevajî caran anku bi awayek pozetîv hebe yan na?**

Serokê berê kesatiyek gelek şoven û navdar bû. Qenaeta min ev e ku rêveberiya nû ji ya berê xirabtir nabe, ya berê herî xirab bû. Lê carê nediyare ka dê çi bikin. Îhtimal heye ku ew guhertinên lcîhan û Tirkiyê jî tesîrê li CHP'ê jî bikin. Renge endamên wê jî zext bikin ku ew jî xwe biguherîne, lê carê ne zelal e ku dê siyasetek nû bimeşînin yan na. Bi raya min tu hêz û dezgehek li Tirkiyê nikare pêşiya guhertinê bigre û li encam de dê guhertin çê bibin û ew yan dê tesfiye bibin, yan jî dê neçar bimînin xwe biguherînin. Bo CHP'ê jî ez bi hêvî me ku dê li demek dirêj de guhertin çê bibin lê ne îro...

**Hûn wek Partiyên legal û yasayî yên kurd li Tirkiyê di gaveke dîrokî de bona yekxistina mala kurd çend caran bi armanca pilatformek hevbeş li hev civiyan. Encam û pêşketinên wê?**

Belê em hertim dibêjin ku yekîtiya kurdan gelek xalek girîng û stratejîk e ji bo rizgariya kurdan. Em bo wê yekê tim li hewildanê de ne ku yekîtiyek pêk were. Piştî reformên ku li Tirkiyê de diqewimin, me jî got ku li Tirkiyê de guhertin çê dibin û hikûmet jî li nav hewildanê de ye, lê navçavê hewildanê jî pirsa kurd e. Lewma divêt kurd helwestek hevbeş pêk bînin bi navê bere yan her navek din. Bi vê çendê jî yekîtiyê pêk bînin û daxwazên kurdan bînin ba hev û pêşkêşî raya giştî bikin. Ji ber ku kurd aktorê herî sereke û girîng in li guhertina Tirkiyê de, kurd gelek azadîxwaz, guhertinxwaz û demokrat in û ger piştgirî û beşdariya kurdan nebe, piroses sernakeve. Ji ber ku hem pirs pirsa me ye, hem jî divêt kurd li serî de doza guhertin, azadî, demokrasî û mafê mirov bikin û ji bo vê yekê jî divêt em derkevin qada siyasetê.

**Encamên dilxweşker li vê derheqê de hene yan na?**

Bele diyalog berdewam e. Daxwaz ew bû ku li serî de em sê partî bin, paşan hemû rêxistinên kuradn û kesatî û siyasetvanên kurd bînin ba hev û komcivîneke bikin û daxwazên kurdan yên netewî û hevbeş diyar bikin û ew hewildan berdewame û milet jî zext dike û ez hêvîdarim ku dê serbikeve.

**Birêz Bayram, birêz Mesûd Barzanî bo yekemîn car weke Serokê Herêma Kurdistanê bi fermî bo Tirkiyê hat vexwendin. Hûn pêwendiyên wan û bi taybet vê seredana birêz Barzanî çawan dinirxînin?**

Bi raya min tiştek baş e. Tirkiyê çavan li hundir înkara kurdan dikir, li derve û parçeyên din jî înkara kurdan dikir, heqaret û bêhurmetî bi serokên kurdan dikirin û siyaseta xwe bi navê xeta sor îlan dikirin. Bi vê wateyê ku kurdan nas nakin, mafên wan jî qebûl nakin û ger ji destê wan jî bê dê jinav bibin. Siroştî ye ew siyaset têk çû, dijberiya kurdan têk çû, û çavan li hundir dixwaze çareser bike li derve jî dixwaze xwe biguherîne û pêwendiyên xwe bi başûr baş bike. Ew pêşwaziya ji kek Mesûd jî parçeyek ji vê siyasetê, êdî dizane ku bi dijberî nikare rolekê li herêmê bilîzin. Lewma dixwazin siyasetek lihevhatî û demî bilîzin, seredana Barzanî jî divê li vê çarovê de bê nirxandin û hêvîdarim encamên pozetîv hebin. Diyakog hertim baştir e. Çunku Tirkiye çiqas pêwendiya bi kurdan re xurt bike, meşrûîyeta doza kurd zêdetir dibe, naskirina doza kurd zêdetir dibe û tesîra pirsa kurd û tevgera kurd zêde dibe. Ew siyaset îtirafa bi gelê kurd e, îtirafa mafê kurdan e. Lewma em pozetîv dibînin û dixwazin ku pêşde here.

Lê hin hevalên me nerehet dibin biguman in ku li wan pêwendiyan de kurdên bakûr xisar bibînin. Lê başe çima seredana birêz Barzanî û pêwendiyên wan dê zirar bide bakûr? Em bawer in ku tu car birêz Barzanî li her qadî û hevdîtinên bi serokên tirk re tu tawîzan nade li ser kurdên başûr yan bakûr, yan siyasetek nerast bimeşîne. Li vê derheqê de dilê me rehet e û em geşbîn in.

**Niha rojeva siyasî ya Tirkiyê û cîhanê bi giştî li ser bûyera Keştiyên Tirkiyê û pevçûna wan bi hêzên Îsraîlî ve mijûl e. Armanca Tirkiyê ji şandina wan Gemiyên alîkariyê çibû?**

Em dizanin ku hikûmeta nû dixwaze siyasetek piralî bimeşîne. Ji aliyekê bi Amerîka, ji aliyê dinê bi Îsraîlê, Ewropiyan û hêz û welatên Îslamî û erebî re pêwendiyan pêş bixin û bi wan mesajan ve piştgiriya raya giştî bo aliyê xwe rakişînin, yan piştgiriya wan bistînin. Gemî tenê bi însiyatîva hikûmetê neçûn, yanî hêzên sivîl û derveyî hikûmetê jî hebûn. Sirûştî ye ku dixwazin piştgirî û sempatiya hêzên Felestînî ji bidest bixin. Li vê meselê de du tişt hene ku divêt mirov ji bîr neke. Yekem ew tundiya Îsraîlê ne dicih debû û em mehkûm û şermezar dikin, çunku divêt li pirsên wisa de diyalog û metodên aştiyane bikar bînin. Ya din jî divê mirov teverê Tirkiyê jî deşîfre bike û ku li derbasbûyî de bi metodên hovane li hember kurdan de sekiniye. Lewma Tirkiye bi xwe jî li vê meselê de bi pirensîp nine û bi mirovayetî jî tevnagere.

**Niha em dibînin ku Hikûmeta Tirkiyê zêde bera xwe dide welat û hêzên Îslamî yên deverê. Gelo qazanca Tirkiyê li rex welatên Îslamî de ye yan paldan bi rojava?**

Bi raya min dijî hev ninin, dewletek dikare bi hemûyan re pêwendî danê, lê divê qibleya Tirkiyê demokrasî be, li gor Tirkiyê jî demokrasî rojava ye, ewropa ye. YE'ê pirojeyek gelek girîng e bo Turkiyê, heta rojeva Tirkiyê ji aliyê vê pirojê ve hatiye dagirtin, lê siyaset tenê bi ser pirensîpan nameşe, her wekî piragmatîsm jî xalek girînge li siyasetê de. AK partî jî wisa siyasetê dimeşîne, ez her du pêwendiyan dijî hev nabîninm. Helbet ger li nav balans û bi pirensîp weremeşandin tu piroblem nine. Lê AK partî gelo li vê meselê de çiqas bi pirensîp dimeşe, nediyar e. Aliyekê wê yê demokrat û guhertinxwaz û aliyek din yê Îslamî jî heye, ji ber vê yekê dixwazin her du aliyan bi hevre bimeşînin.

**Çawan dibe ku Tirkiye li Felestînê de aştîxwaz be, lê li hundirê xwe û bo xelkê xwe şerxwaz û rojane cinayet û tawanên hovane bide meşandin?**

Diyare ew cihê rexnê ye û bi salan e ku ew cinayetan dimeşîne û em dustandardî, bêpirensîpî û helwesta wan ya xirab rexne dikin. Tirkiye ji bo 150 hezar tirkên Qibrisê federasiyon dixwaze, lê gava basa pirsa kurdên bakûr tê kirin, heta bi mafê kesane û mafê çandî jî razî nabe. ji bo tirkên Bolxaristanê li nava hewildanan de ye û qîre qîr û dengê xwe bilind dike, lê li pirsa 20 milyon kurdan de dikewe bêdengiyê û wisan riftar dike ku tiştek tune ye û realîteya wê nine. Lewma eynî tişt, bo Felestînê hate rojevê, helbet divê mirov li her dera cîhanê de mafê mirov biparêze, lê divê berî her tiştî li ber deriyê xwe û li nav mala xwe de wan tiştan biparêze.



**Yanî bi gotina pêşiyan, derziyê li nav çavên xelkê de dibîne lê şûjinê li çavên xwe de nabîne**

Belê heman tişt, temam bicî ye. Tirkiye di vê meselê de yanî dustandardiyê de meşhûr û navdar e. Lê ev helwesta nedirost ji aliyê raya giştî ve tê dîtin em hêvî dar in Tirkiya tiştên ku bo Felestiyan, Qibrisiyan, Bolxariyan dixwaze, ji bo kurdan jî bixwaze û berî her tiştî li nav xwe de cî be cî bike û bibe nimûneyek baş bo Felestîn, Qibris û Bolxariyayê.

**Niha em dibînin ku pêwendiyên her du dostên duh û dujminên îro li xirabtirîn asta xwe de ye, ew dê çawan bikarin xwe ji vê kirîz û astengiyê rizgar bikin?**

Îsraîl dostê herî nêzîk û mezin yê Amerîkayê ye, Tirkiya jî endamê Nato û dostê Amerîka ye. Ez ne bawerim ku kirîza pêwendiyên wan kûrttir bibe, her hal de jî hinek siyaseta rojane dimeşînin. Ji aliyekê ve pêwendiyên xwe yên leşkirî û teknîkî pêre xurt dike, ji hêla din ve jî li ber raya giştî de mesajên din yên rexnegirane û tund dide. Yanî du rûyên dewletan hene. Yek ku raya giştî dibîne, yan din jî ku em nabînin û li nava pêwendî berjewendiyan de cî bi cî dibin.

**Ew bûyera han çiqas dikare tesîrê li aştiya Rojhilata Navîn û bi taybet li navbera Felestîn û Îsraîlê de bike?**

Bêşik her du welat girîng in û renge aloziyên wan encamên nigetîv li ser pirosesa Rojhilata Navîn hebin. Lê pirsa Îranê jî heye, ya Îraqê heye, yanî tenê ew faktor pêvajoya deverê diyarî nake. Ew tenê faktorek e, yanî niha de mirov nikare tiştek konkirêt bêje.

**Kek Bayram bi raya we Tirkiye karî di wê lîstika siyasî de serketî be û zêdetirîn zirarên siyasî û dîplomasî li Îsraîlê bixe û bi vê çendê jî pêgeha xwe di nav deverê de bihêztir bike. Ewa jî di halekê de ye ku em dibînin di rûyekî de Îran xwe bi xemxor, dilsoj û berevankarê gelê Felestînê dizane û 30 sal e bi piştevaniyên madî, manewî û locîstîkî, bi hemû awayekê ji bo wan bac dide, lê Tirkiyê bi wê Hezîna kêm lê siyasiyane karî di wê lîstikê de ser bikeve û li hember de jî Îranê bi wê siyaseta xwe kariye zêdetir xwe goşegîr û li asta Cîhanê de xwe tenêtir bike?**

Dibe em qebûl bikin ku dewleta Tirkiyê xwedî kevneşopeke dûr û dirêj e, li ser mîrasa Osmaniyan hatiye avakirin, heta em dikarin bêjin li ser mîrasa Bîzansan hatiye avakirin. Dewleta Turkiyê di warê siyasetê de xwediyê tecrobeyek dewlemend e û peywendiya wan û Yekîtiya Ewropayê heye û ewa jî avantajeke ji bo Tirkiyê, bala wan kişand û roja didûyan, Tirkiyê Konseya Ewlekariyê civand, cara yekemîn ji riya hêzên Ewropayê ve reaksiyoneke bilind nîşan da, behreke fireh li hember Îsraîlê de ava kir. Ji ber wê yekê jî mirov dibe rola Tirkiyê bibîne û Tirkiye roleke berfireh dilîze di vê pêvajoyê de, lê ne serkevtî ye. Tirkiye bi wê tenê ser nakeve, Jiber ku pirsên navxweyî nasnama dewleta Tirk nîşan didin, di mesela Îsraîlê de dikarin puan wergirin û serkevin, lê bi giştî dinya jî dewleta Tirk dinase û nikarin raya giştî bixapînin.

**Di xwenîşandanek li Yonanê ya endamên Hizbullayê ku Îran mezintirîn piştevanê wan e, lê alaya Turkiyê hilgirtibûn**

Belê wisan dixuye Tirkiye ew kirîz bi başî bikar aniye lê tenê bi wan, siyaseta dûr û dirêj nayê meşandin, dinya tenê bi wê yekê mijûl nine. Meselên din û babetên din jî hene û babetên Turkiyê bi xwe jî hene, mesela Artêşê, nakokiyên navxweyî yên dewleta Tirkiyê, nakokiyên dewletê û Kurdan û tenê tav bi peywendiyên Tirkiye û Îsraîlê re hilnayê.

**Keko ew helwesta yekgirtî û yekdeng, ew wijdanên hişyar li asta navnetewî de li derheq wê bûyerê, çima li ser cinayetên ku rojane li ser gelê Kurd ji aliyê Îran û Tirkiyê ve tên meşandin, nahên dîtin û Cîhan li hember vê yekê de kerr e û çavên wan jî kor in. çima?**

Min got, di xwenîşandan û reaksiyonan de, rola pêşkêşkariya Tiurkiyê gelek girîng e. Îro dewleta Tirkiyê ligel îmkanên xwe ên navxweyî û navnetewî bikar anî, sefer ber kir ji bo pêkanîna vê reaksiyonê. Mixabin Kurd xwediyê wan tune ku wê meselê bînin rojeva dinyayê û xwedî lê derkevin. Em bêjin bala raya giştî bikşînin di wê meselê de derfet, îmkanat, ragihandin gelek girîng in, lê Kurdan ew tu ninin. Di eslê xwe de ew zulm û zora ku li Kurdan dibe, di dinyayê de li tu kesê nabe. Hûn dibînin ku wexta dewlet, îmkanat tunebe yan jî berjewendiya hêzên navtewletî di wê meselê de tunebe, weke we got dinya kerr dimîne, lê derheqa meselek siviktir de, hûn piropagendan bikin û logoyan çê bikin, hûn dikarin raya giştî û dinyayê mijûl bikin, yanî dinyam, dunyaya xwedî hêzan e yanî dengê wan derdikeve.

**Kek Bayram di dawiyê de eger we gotinek taybet hebe keremkin?**

Belê carek din jî gelek sipas dikim ji bo we ji bo pêşwaziya wê bernamê, ez ji dil û can serkevtinê dixwazim we re. Ez silav û hestên piştgiriyê xwe pêşkêşî Kurdên Îranê dikim û ji wê raperîna dawî re serkevtin dixwazim, hêvîdar im ew serhildan berdewam û zîndî be. Herweha em dibe wê serkevtina Kurdistana Îraqê ji ya xwe bibînin û wek canê xwe biparêzin. ji bo Turkiyê jî tevî astengî û zehmetiyan, lê ez hêvîdar im ku azadî û rizgariya miletê Kurd ne dûr e, nîzîktire ji duh, ez wan hestan carek din silavên xwe pêşkêşî we dikim.

# Hicab, Parastina Ewlehiya Civakî Yan Desthilata Siyasî?



**Ceifer Mubeşirniya**

Her sal di destpêka werza germê li Îranê de, basek demkî dihat kirin ku ew bas di gotinekê de ji aliyê “îmam cûme“ pêşnimêjan ve li menberên mizgevtan yan tirîbûnên ragihandina siyasetên Komara Îslamî ve di nimêjên înê de dihat pêşkêş kirin û piştre jî dibû biryar li ser hêzên ewlehiyê û jinên xelkê dibûn armanca batûm û potînên wan.

Eşkere ye ku ew basê han tiştek nine xêncî pirsa hicaba bi zorî a jinan ku hersal weke gefek ji jinan tê kirin. Pirsek ku birastî heya niha jî desthilatdarên Komara Îslamî eyan nekirine ku çi ji jinan dixwazin.

Îsal jî weke hersal ew bas hat kirin, lê bi awayek taybetî. Ew basê han hem gelek zû dest pêkir, hem jî bi awayek berfireh bûye basek girîng û mirov dikare bêje bûye rojeva siyasî a Îranê û karbidestên Komara Îslamî bi taybetî li niwêjên înê de.

Ewa di halekê de ye ku ew basê han di kakila xwe de bi tu awayekê pirsek civakî nine û belkî pîlanek din a siyasî ye, li hember gefek micid a li ser siyaset û desthilata Komara Îslamî a Îran.

Siroştî ye ku di hemû cîhanê de bi taybetî bi pêşketina teknolojî û ji hev nizîkbûna civakên cuda cuda ên cîhana îro de, gotinek yan kiryarek berevajî pêvajoya hizr, jiyan û pêşketinê bihê kirin, ahenga jiyana xelkê tevlihev dike û astengê dixe ser riya meşa asayî a jiyanê.

Civaka Îranê jî bi pêkhateya hemû netewan, mafê jiyanek asayî û îroyîn heye, ku jiyana wan jî bi gotinên bêkêr û berevajî ji meşa asayî ya xwe der diçe.

Vca mirov ji gotinên Ayetulla Sedîqî di peywendî li gel pirsa hicab û erdhejê de ku bi gotina wî ewlehiya erdê di demanên jinê de ye, cîhan ji bêeqliya xwe haydar kir, yan ji gotinên Natiq Nûrî, siyasetvan û kevne melayê wefadare Komara Îslamî û hin ji melayên din ên desthilatdar di Îranê de ku gerek jin ji tûka ser heya tiliyên dest û pêyan di çadir û xêliyên reş de bihên nixavtin, yan jî biryarên hêzên ewlehiyê piştî gef girtin, îşkence, tecawizên cinsî, kuştin, îdam û bi her awayek tepeseriya jinan, bi neçarî hicab bi ser wan sepandin û piştre hêcetek din ji wan re tune bû, vêca ji wan kopalbidestan re hat fermandayîn ku her keç û jinek weke mankenan bi rê de here, dê bihê destbiserkirin û pişre ji hêzên navbirî re biryar hatiye dan ku her jinek bê hicab bi 100 heya 300 hezar tûmen cezayê nextî bihê kirin. Ji aliyek din malbatên wan keçan seba hicabê bo navendên ewlehiyê tên gazîkirin û xwendin ji wan re tê qedexekirin. Herweha dixwazin werzişa sibêzû ya jinan li dervey malê, seba heman pirs, bihê rawestandin û roj bi roj biryarên tundtir ji hemû navendên ewlehî, olî, ragihandinên hikûmetî bi taybetî kanalên televîzyonî û bigiştî desthilatdarên hikûmetî li ser jinan berdewam in.

Fitwayên melayan ku piştî ragihandinê raste rast dibin biryarên hikûmetî, destbikar bûna hêzên ewlehiyê bi tepeseriya jinan, ne bicih anîna biryar û erkên olî ye, belkî mebestên taybetî têde hene, ku bider nine ji hewildanek din bo pîlanek siyasî di qalibê pirsa civakî de. Ew pîlan ji rêde derxistina meşa pêla bihêz ya nerazîbûna xelkê ji şîweya îdarekirina welat a di çarçoveya berjewendiya giropek talançî û mirovkuj de, herweha daxwaza rewa ya xelkê a vegeriyan bo jiyanek siroştî û dûr ji xurafat, derew, hevgav li gel cîhanê û dîtina sê aliyên din ên xincî pêşiya xwe. Ew xwastik jî bi çend awayan hatiye daxwakirin û hê jî bi awayên cur bi cur didome.

Ji kesê veşartî nine ku bi nizîkbûna ji salroja pêlên nerazîbûna giştî a xelkê Îranê li encama binav hilbijartina Serokkomariya rejîmê de, weke baştirîn fersend ji xelkê azadîxwaz yê Îranê re, mifah jê hat standin û ew pêl heya niha jî zindî û weke ava bin kayê, bi şoreşek bihêz a nediyar tê zanîn, rejîm jî wê yekê bi gefek mezin û micit li ser xwe dizane.



Di rastî de rejîma Îranê seba karnameya reş a derbazbûya xwe li hember xelkê, tu hêviyek nemaye ku bi zimanê siyasî di warê pirsên siyasî de bi diyalogê qenaet bi xelkê bîne. Lewma wê carê jî weke her car bi pîlanek din a bi navê pirsa civakî li gor ola îslam û yasaya bingehîn ya Komara Îslamî a Îranê, pîlanek din di xeyala xwe de, raçandiye.

Lê ewa ku herî girîng û balkêş e, ne ev e ku di salroja destpêka nerazîbûnan de, dîsan xelkê Îranê dê bikeve ser şeqaman û tirajîdyên sala derbazbûyî dê bihên dubare kirin yan na, belkî, tirsa rejîmê ji wê rojê ye ku heya ew roj nizîk dibe, pêtir û xurttir organên hikûmetî bi menberên mizgevtan û hêzên çekdar û mirovkuj ve dihên memûrkirin ku bi futwaderkirin, gefxwarin, û her terze givaş û tepeseriyek ji jinan re bihê encamdan, heya ku xelkê xwazyarê wekheviyê di navbera jin û mêran de, ku piraniya xelkê Îranê pêk tîne, weke qata azadîxwaze civakê di refa pêşî ya wê bizava nerazîbûna de ne, bihên tûrekirin û kerb û kîna siyasî ya awis ji şoreşeke mezin ya siyasî, ber bi arasteyek din a bi navê civakî bibin û nerazîbûna wan jî di wî warî de, li gel xala Yasaya Bingehîn a di warê hicaba jinan de bidin ber hev û bi binpêkirina yasayê li gor dîtina Komara Îslamî bidin zanîn. Lewma di dîtin û xeyala desthilatdarên Komara Îslamî a Îranê , pirsa hicaba jinan bi awayek xurttir ji caran, dê bikare bihêztirîn mijar be bo kêşme kêşm û aloziyek pir bandor ji civaka Îranê re, bo xwe derbazkirin ji wan rojên ku nemana desthilatdariya wan tê ber çavên wan.

## Rejîma Tepeserkar A Îranê Yek Ji Deshilatên Herî Xirab E



Saziya Efûya Navnetewî rapora xwe a li dor binpêkirina mafê mirovan di sala 2009’an de bilav kir. Li vê raporê de rejîma Îranê wek yek ji deshilatên herî xirab di warê binpêkirina mafê mirovan de da nasîn. Wê saziyê sala 2009’an li Îranê de wek sala wEhşet û hovîtiyê binav kir.

Li gorî vê raporê li dirêjahiya salekê de aliyê kêm pênc hezar kes hatine girtin. Bûyerên sala 2009’an li Îranê de, Îran kire yek ji wan welatên ku herî zêde li ragihandinên giştî de bas li ser hate kirin. Li sala 2009’an de xelkê Îranê li dor ragihandina encamên dengan nerazîbûna xwe bi awayekî aştîxwazane eyan kirin, lê hêzên rejîmê dest bi tepeseriya xelkê nerazî kirin.

## Li Bajarê Serdeştê Pêşmergeyekî Şoreşa 46 – 47’an Çû Ser Dilovaniya Xwe



Roja 2’ê Hezîrana 2010’an, Mela Salih Merûfiyan, pêşnimêjê gundê Baxîserdeşt û kesayetiyê welatparêzê vê deverê di yek ji nexweşxaneyên bajarê Mîyanduwawê de çû ser dilovaniya xwe.

Nûçegihaniya Kurdistanê dê vê derheqê de ragihand, navhatî pêşmergê çaxê berxwedanên sala 46 – 47’ê bû. PDKÎ bi vê hêcetê behî û serxweşiyê ji malbat û kesûkarên Mela Salih dike.

# Li Batmanê, Di Govenda Cegerxwîn De Raqisîm!



## Konê Reş

Li ser daxwaziya şaredariya bajarê Batmanê(**Êlihê**), min di rojên 21-22-23 gulana 2010 an de, beşdarî di (**Rojên wêjeya Kurdî**) de kir. Ew rojên ku yekemîn care ji aliyê şaredariya Batmanê ve, di bin navê (**Yê ku Peyv Ji Ezman Daxist Erdê; Cegerxwîn**) û (**Di Edebiyata Kurdî ya kilasîk de Erka Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî û Feqiyê Teyran**) hatin organîzekirin. Çalakiyên hersê rojan di salona Sînemaya **Yilmaz Guney** de hatin lidarxistin.

Di van hersê rojan de, di gel heval û hogiran; Osman Ozçelîk, Arjen Arî, Îrfan Babauglo, Lal laleş, Kawa Nemir, H. Mem, Şefîq Beyaz, Zana Farqînî, Şewket Sindî, Beyar Bavî, Merdan Newayî, Dilawer Zeraq, Berken Bereh, Ronî War, Şêxmûs Sefer, Şener Ozmen, Ferzan Şêr, Şêxmûs Kaya, Ehmed Kurdî, Salihê Silo, herdu keçên Cegerxwîn (**Sûad** û **Selam**) û mêvanê rûmetê romannivîsê Kurd **Bavê Nazê**, me di govenda **Cegerxwîn, Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî û Feqiyê Teyran** de dîlan gerand û bi germî em têde raqisîn..

Erê, sebaretî hevalên beşdar, ez wan heval û hogiran mîna pêşmergên bajaran dibînim. Ez nivîsandina bi zimanê kurdî nîşana mêraniyê dibînim. Erê mêranî yê.. Di baweriya min de tev kesên ku bi kurdî dinivîsînin mîna pêşmergên bajaran e.. Erê, ne tenê pêşmerge yên serê çiyayan e.. Eger dîroka berxwedana me a hebûnê bi pêşmergên serê çiyayan û tivinga wan hatibe parastin, îro roj, hebûna me, hewcedariya me a nû bi pênûs û xama pêşmergên bajara ye.. Bi pêşmergên bajara ye.. Ewên ku di bajaran de zimanê me diparêzin, bervedêriyê di ber kultura me de dikin, bi zimanê me his û hasten xwe dertînin û dibêjin; Kurdim, aştîxwazim, welatê min Kurdistan e..

Di biwara hevdîtina van heval û hogiran de spasiyên xwe pêşkêşî şaredariya bajarê Batmanê dikim. Fermo eve gotina ku min di salona Sînemaya **Yilmaz Guney** de gotiye:

**Ev cîhana xapînok, heta me jê xwe nas kir**
**Çibkim fêde nemaye, emrê xwe min xelas kir**
**Çima rastî dibêjim, li nav dîna bûme dîn**
**Heta bimrim, ji nû ve xelk ê bêjin Cegerxwîn**

Cegerxwînê dest zêrîn, Cegerxwînê ku bi sedan şagirt bi saya afirandinên wî fêrî xwendin û nivîsandina zimanê Kurdî bûn.. Cegerxwûnê ku 60 salî xebat û bizav bi berdewamî di ber zimanê Kurdî de kir.. 60 salî di pêvajoyeke pîroz de liviya û xwe jê ne da alî.. Bi saya gel ew çêbû û bi saya wî şagirt çêbûn, di navbera vê hûnandinê de zimanê Kurdî pêşket û afiriandinê cihê xwe di nav berhemê me de dît.

Ew pêvajoya ku ji rewşenbîran re bûye jêdereke bingehîn; tevî ku ez ne di wê bawerîyê de me ku, rojên derbasbûyî, rojên îroyîn û paşerojê li trazûya xwe xînin, lê sûdeya ku di serboriya Cegerxwîn de, ji xortan re heye, gelekî giring û pêwîste.

Wiha jî, ez ne bawerim ku rewşenbîrên Kurd wê karibin pêşkevin, biserkevin û tiştekî nû ji xwe re pêk bînin bêyî serborîya Cegerxwîn ya zengîn û bi sûde.

Belê, hêjî Cegerxwîn bi rewşenbîriya xwe ya jiyanê, ewa taybetî pê, di nav me de amadeye. Navê wî, bi saya helbestên wî, ji nav gel nayê jibîrkirin. Ew helbestên ku rojên çetîn û dijwar derbas kirin, û hêj jî di nav me de amade ne, wek ku ew nemiriye. Ne xasim dema ku em li gotineke Kurdî ya resen digerin, hingê em wê gotinê di nav helbestên wî de dibînin û bi taybetî, di nav helbestên wî ewên ku dengbîjan kirine stiran û li ser zarê her mirovekî Kurd in.

Cegerxwîn ji malbateke xizan, nezan û belengaz bû. Bavê wî cotkarekî Hesarî bû, ev gundê ku di destpêka çerxê 20 an de, cîgehê kuştin û berberîyê bû.

Di wî heyamî de, cehalet û nezanînê konê xwe di ser Hesarê re vegirtibû, ji 20 gundên wê herêmê mirovekî xwendevan peyda nedibû ku nameyekê bixwîne...

Wî, ji Hesarê destpêkir û berê xwe da xwendina olî, di nav re xwe dît ku bê hemdî xwe ber bi hûnandina helbestê ve diçe û weha bi toreyî li pêşberî Melayê Cizîrî, Ehmedê Xanî, feqehê Teyran û Bateyî sekinî, destê xwe ser hev danîn û ji pêmayê wan tûrikê xwe dagirt û bi dûv xwendina olî de li her 4 perçeyên welat geriya, êş û janên gelê xwe ji nêzîk ve naskirin... Dawî şaşik û cibe avêtin rih kurkir, şortê Firansîzî li xwe kir û xwe berda sikak û kolanên Amûda şewitî, bang kir û got:

**Kurdino, merdino, pir xweş e serxwbûn**
**Ew demên tar û teng ko me dîn vane çûn**
**Dest bidin hev hemî pêşkevin em hemî**
**Da biçin bo welat yan mirin yan felat**

Hingê xelk di çarşîya Amûdê de lê kom bûn, dilê xwe pê şewitandin û ji hev re gotin: mêzekin Mele Şêxmûs dîn bûye? şaşka xwe avêtiye, riha xwe qusandiye, cibê xwe dirandiye û cilên gawiran li xwe kiriye û hinan digot: **Heyfa kurê bavan çi xortê bedew dînbûye!** Xwedê neyne serê kesî...?!

Gelek lêkolînvan li dor helbestên Cegerxwîn rawestiyane, gelekan ji wan pesnê wî dane ku ew tekane helbestvan bû di heyamekî de hat yên weke wî pir kêm bûn. Hem jî ku wî bi xurtî li tev deriyên toreyê daye û bi serbestî derbas bûye.. Ta pileyekê ku tê gotin: Cegerxwîn polîtîk û tore bi hev ve girêdane, tevî ku maye mêldarê hûnandina helbestê û tev his û hestên xwe di vê rêkê de xerc kirine û vê yekê hiştiye ku piranîya helbestên wî ta roja îro li ser zimana bin...

Erê, helbestvanê netewî Cegerxwîn bi berdewamî û bêrawestan, bi zimanê xwe yê netewî nivîsand.. Ji ziman û edebiyata gelê xwe re zimet kir û xwe berda nav tev bûyerên welat û welatiyên xwe. Wî, ji sala 1926 an bi helbsta **Pîra Torê** a li ser Alaqemşê destpêkir.
Her heşt-neh dîwanên wî, li ser zîlana ferheng, gramêr, dîrok û erdnîgariya welat dizîvirin.

Erê, dengê Cegerxwîn bi kovara Hawarê re derket, lê bêtir dengê wî bi saya hebûna feqe û melayên welatparêz di nav gel de belav bû. Ji ber ku ew gund bi gund, bajar bi bajar li welatê xwe digeriya û helbstên xwe digotin. Rewşenbîr û welatparêzên wê demê jî bi hezkirineke mezin li helbestên wî guhdarî dikirin û wiha ezber dikirin. Bi demê re helbestên wî ji hicrikên feq û melan derketin û di nav gel de belav bûn.. Gel jî, bi sîngek bireh û bi hezkirineke mezin helbestên wî pejirandin, hembêz kirin, sazbendan kirin stran û mitirban kirin dûrkên govendan.

Ji rexekî din ve seyda helbetên evîndariyê jî nivîsîne, evîndariya wî jî bi du mijara ye. Yek evîndariya welatê wî ye û yek evîndariya wî a kesayetî ye, wek insan , wek mirov. Mijara dilketiya wî a pêşî welatê wî ye. Ew welatê ku di şibhê keçekê an jinekê de aniye ber çavê xwe û helbest û sirûd li dor gotine. Mijara din evîna wî a kesayetî bixwe ye, hez kiriye, hez jina bedew û spehî kiriye..û wiha helbestên evîndariyê avêtine ser..

Ew yek bû ji wan kesên sereke ku bi berhemên xwe kovara (Hawar) ê ya Mîr Celadet Alî Bedirxan dixemiland û ta rojên xwe yê dawî ma li rex welatiyên xwe bi tev kul, êş û xemên wan ve, hem jî, wî ji tev şoreşên Kurdan re helbest gitine û rojekê pênûsa xwe nekir bin xizmeta şêxekî olî an axayekî zordar, bi tenê pênûsa wî wek şûrê azadiyê bû di destê wî de, bi wî şûrî şer dikir ku xwe bighîne azadiyê.

Roja îro Cegerxwîn bûye wek stûnek zêrîn li ser zîlana helbesta kurdî û di her çar perçeyan de digere. Di wî heyamê xerab de, ew heyamê ku zimanê kurdî qedexe bû û kesî newêrîbû bi gota kurd û ereb an kurd û tirk birane, Cegerxwîn helbest bi kurdî afirand û bi mêranî û dengekî bilind helbestên xwe di nav gel de gotin û belav kirin. Ta radeyekê ku gelekan ji nexwendiyan helbestên wî ezber kirin û di civatan de gotin û dibêjin...

Ji rexekî din ve, Cegerxwîn şagirtekî zîrek bû ji şagirtên şêx Ehmedê Cizîrî. Ev şagirt bû pirek di navbera helbesta kilasîk û nû de, ango Cegerxwîn kevin û nû yê me bi heve girêdaye û di wiha girêdan de, rola wî zor mezin e di pêşketin û berdewamiya afirandina helbesta kurdî de.

Navdêrî û dengvedana navê Cegerxwîn, berî her tiştî li hûnandina helbestên wî û girêdayîbûna wî bi nexweşî û kêşeya gelê wî ve, vedigere.. Di wî heyamê ku nezanîn û cehaletê konê xwe di ser welatê me re vegirtibû wî helbestên xwe li ser şîn û şadiya gelê xwe dihunan.. Cegerxwîn mêr bû, li tiştekî ne pirsî ne li mal ne li zarokan.. Kul û xemên wî gelê wî bû..

Xwe kiribû **weqif ji gelê xwe**, anku weqfa Kurdan bû. Gereke Kurd jî weqfekê bi navê wî ava bikin û di bin navê weqfa wî de dîwanên helbestvanên kurd çap bikin... Ji rexekî din ve; ji gelek hawan ve şerê wî dibû, di gel ku rewşa wî a aborî perîşan bû, çima bûye endamê partiyeke kurdî, çima xwe ji afirandina helbestan re vala nekiriye?! Li gor baweriyên min, di wî heyamê ku şerê Cegerxwîn bi tundî dihat kirin, ku ne ji hevalên wî yên wê rexistinê bana û bi taybetî mamoste Hemîdê Derwêş, Cegerxwîn nikarîbû berdewam kiriba.. Di vî warê de ez spasiyeke gerim ji mamoste Hemîdê Derwêş re pêşkêş dikim.

Di wî heyamî de gelek melayên hevalên wî hebûn, wan jî pîş bi hûnandina helbestê dikir û dibe ku helbestên gelekan ji wan ji helbestên Cegerxwîn bedewtir û spehîtir bûn, lê hem mêraniya Cegerxwîn û hem berdewamiya Cegerxwîn li bal wan nebû.. Mixabin gelekan ji wan şerê wî jî dikir û belav dikirin ku Cegerxwîn kafire..!

Ji rexekî din ve, wek ku kurdan gotiye: Heçî berê gula zerê, Cegerxwîn berî tevayî hogirên xwe ji nifşê Hawarê, bê rawestan di 60 salî de bi dûv gotina kurdî de geriya, piraniya heval û hogirên wî, ew rêk nebirin serî, hin ji wan bi siyasetê daketin û hin li malên xwe rûniştin û hina ji tirsan ve herhemên xwe şewitandin... Bi tenê Cegerxwîn xwe ji rêbaza ku dabû ser ne hat xwarê û bi mêranî li ser liviya.. Şek têde nîne ku Cegerxwîn ne di wî heyamî de ba, wiha nav û deng pê nediket.. Derfetin zêrîn jêre hatin, ji gelek rexan ve, wî jî bizanîbûn ew derfet bi kar aînin û sûde ji wan girt.. Yek ji wan derfetan derketina kovara Hawarê û alîkariya Mîr Celadet Bedirxan bû.. Mir Celadet berhemên wî yên sereta di Hawarê de belav kirin û dîwana wî ya yekem di nav weşanên Hawarê de çap û belav kir...

# Felsefeya Şahî û Dawetên Kurdî li Bakurê Kurdistana Îranê

**Beşa 2**



**Mecîd Cinîkanlo**

Her wek me li beşa yekem ya gotara xwe de bas ji dîlanên Kurdî kir, dîlana Kurdî li rastî da xuyaker û nîşanderê rastiya civaka Kurdî ye. Çend salan berî niha li Herêma Îlamê, Kêlek hat peydakirin ku li ser wê Kêlê wêneyê çend Kes an li ser bû ku li destê hevde dîlanê dikin û wisa tê texmînkirin ku dîroka wê Kêlê vedigere bo 20 Hezar Salî berî Zayînê.

Li serdemê Mad de, dîlanên Kurdî awayekî hemasî û neteweyî bi xwe girtin. Îro rojê neteweya Kurd wek paşmayiyên Madan, mîratgerê wan dîlanan in ku zêdetir bêhna jiyan û berxwedanê didin, berxwedan ji bo man û jiyanê!

Dîlana Kurdî bi piştevaniya çandî, olî û dîrokî hebûna xwe da îsbatkirin. Her yek ji beşên dîlana Kurdî bi awayekê ne, ku mirov bi temaşeya wan dîlanan dizane ev dîlan, axaftin û şiroveya rûdaw û vegera wê bi awayê reqs û semayê ye.

Li reqs û dîlana Kurdî de tu tiştek bi navê piropagendeya ji bo leşê mirov wate nade û bi gotinek dinê, reqsa Kurdî reqseke şehvanî nine û li rastî da reqseke rezmî ye.

Li dîlana Kurdî de jin û mêr dest li destê hev, ji bo armanceke hevbeş û bi keyf û xweşî ji bo bûyereke siroştî dawet û dîlanê dikin.

Dîlan û dawetên olî li rastî da pareke din ji wan dawetên Kurdan pêk tînin. Li reqsa olî de ji ber vê yekê ku oldar ji bo xwedayê xwe rêz û hurmetê datînin, bi dawet û dîlana olî û destberdan ji mal û cîhana mirovan, li ramana xwe da ber bi esman û xwedayê xwe diçin, û bi vî awayî hemd û şukra xwedê dikin.

Mirov her li destpêka hebûna xwe de bi her awayekê rêz ji Xaliqê xwe girtiye û hertim cehd kiriye ku Xaliqê xwe razî bike, çimku xwedê bi madiyatê ve nayê girêdan û li ber vê yekê, mirov bi reqs û şahiyê xwe nêzîkî xwedê kiriye û bi vî awayî rêz û hurmeta xwe bi Xaliqê xwe nîşan daye.



Li Îrana kevnar de çend curên reqs û dawetan hebûne ku tenê ji bo razîkirin û şukra xwedê bûne, ku em dikarin îşare bi reqsên wek: Şemnizm, Perîxanî, Zar û Horeyê bikin.

Li rastî de hemû ev reqs û şahiyane ji bilî şukra xwedê û gotina serpêhatiyan, bîranîna dîrok û rastiyên nav civaka Kurdî dane, ku bi awayên curbicur hatine çêkirin û mirovê Kurd bi vî awayî hêz û pitansiyêla pengorî li cesteyê xwe da bi rêya dîlanê azad dike û bi vî awayî wek hêviyekê li nav xwe da pêk tîne, yan bi gotinek din dîlan û daweta Kurdî gotina hizreke zor kûr û wek hêviya nav civaka Kurdî de ye, û ev dîlanane yekbûna gelê Kurd didin xûyakirin. Li rastî da ev dîlan û şahiyên Kurdî bi komkirina mirovan li dora hev, li dirêjahiya dîrokê de, bûye sebebê azadîxwazî û wekheviyê li nav civaka Kurdan de, û neteweya Kurd li dirêjahiya dîroka azadîxwaziya xwe de, hertim wek dawetên Kurdî li halê meşiyan û goherînê de bûne û ev yek bûye sebebê azadîxwazbûna Kurdan, ku îrorojê li Rojhilata Navîn de Kurd wek gelê herî azadîxwaz tên naskirin.

Rîtm û nezma nav dawetên Kurdî de zêdetir bi wateya hevgirtîbûna neteweya Kurd e, û destmala destê binçopiyê wek sembola alaya Kurdan tê mêzekirin. Mirov bi giştî hez li azadiyê dikin û hertim cehdê dikin ku xwe li çengê bindestiyê rizgar bikin, destmala destê serçopiya dîlanê ku sembola alaya Kurdan e, û ala xwe bi wateya serbixwebûna neteweyan e, bi wateya rizgarî ji çengê êxsîrî û dîl bûnê ye, ku hertim wek alaya Kurdan ku bi sala ye li çiyayên Kurdistanê bilind hatiye ragirtin û li rastî de destmala destê serçopiya dawetê, sembola nekevtina vê alaya pîroz e.

Serçopiya dîlanê li rîtmeke taybetî, rêberiya dîlanê dike û hemû endamên tîpa dîlanê tevî serçopiyê, yeketî û nezmê pêk tînin, ku ew yek bi wateya guhdana bi rêberiyê ye, bi awayekê ku Kurd li pey rêberên xwe xebat û têkoşînê dikin.

Bi awayê giştî dîlan û şahiyên Kurda bi giştî û herêma bakurê Kurdistana Îranê bi xasmanî, îrorojê û bi derbazbûna zeman awayekî berxwedaniyê bi xwe ve girtine, û zêdetir tê wateya hebûna neteweya Kurd, ku Kurd di her rewşekê de bin, bi birêvebirina wan şahiyan, dib ne deng û hawara neteweya xwe.

Xortên welatperwer ên Kurd bi birêvebirina wan dîlanan, hebûna xwe didin îsbatkirin, û ji bo azadî û rizgariya ji destê zilm û zordariyê de diqîrin û rihê berxwedaniyê di nav xwe de diafirînin.

---

**Kaniya Helbestan**

## Di Şeva Min De Stêrek



**Beşîrê Mele**

Dilkêşa şevên dirêj bi êşin

Nalînê evîndaran dibêjin

Bizanîba çiqas rondik ji bo we

Di dilê çavên xwe de ez dibrêjim

Felekê nîgar di dill de badaye

şuwîna we di çavê min de xwiyaye

we jîna xwe kir goriya hişê kor

tovê işqa we veşîn û giyaye

li ber bejna weyî agirê bala

çar şemalan ronak ji we vedaye

hûnin Bilbila Gula perîşan

sitrana we li ber qehrê rijyaye

gula sipî lêv sor û dilî kal e

bê pêjnî axîn û qîr û hewar e

ne tenê Bêstûn Zagros Qendîl kola

Afrodet e Nîsaba û Eştar e...

vê yarê xwe kuştî û dil dibê ka

bese Şêrîn mirî ev çi bazar e !

Barana lêv ternik hetî ber derî

ji xem rabe dilo aqil bik dar e

agiri

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com



## Sînemxan Bedirxan Bû Seroka Rûmetê Ya PEN'a KURD




Avesta - Keça Mîr Celadet Bedirxan, Sînemaxan Bedirxan, ji bo hilbijartina wê weke Seroka Rûmetê ya Pena Kurd, nameyeke spasiyê ji serokê Penê Dr. Zerdeşt Haco re şand.
Gelî birêzan,
Ev demek bû, li Stenbolê ji çokên xwe ameliyat bûm, û ji ber tendirustiya xwe min nekarî ez beşdarî kongreya we bibim.
Ji bo vê biryara ku we di derbarê min de wergirtiye, ku ez bibim Seroka rûmetê ya Navenda Pena Kurd, ez gelekî spasî serkirdayetî, birêvebir û hemû endamên Navenda Pena Kurd dikim û ez bi şanazî vê biryara we dipejirînim û ji bo her karekî amadegiya xwe nîşan didim.
Her wiha ez hemû birêvebirên ku di vê komîteya nû de hatine hilbijartin, pîroz dikim û hêvîdarim di kar û bernameyên xwe yên nû de serkeftî bin...
li gel silavan: Sînemxan Bedirxan

## Rejîma Îranê Bi Qasê Çêkirina Du Bombeyan Uraniyom Heye



Kanala Televîzyonî a CNN'ê ragihand ku lêkoler û lêgerên navikî dibêjin Îranê biqasê çêkirina du bombeyên navikî şewata Yraniyomê heye.
Lêkuler û lêgeran berî wê ku Şêwra Ewlekar a rêxistina navnetewî di derbarê pirogirama navikiya Îranê de biryarê bide, wan destxistinên xwe belav kirine.
Li gor heman raporê, "Barak Obama" Serokkomarê Amerîkayê li halê sepandina û ceza û zext û givaşan bo dewra nû ji tehrîman li dijî Îranê ye.

## Lehî Û Bagerê Emerîkaya Navîn Serûbin Kir



Ji ber lehî û bahoza tropîkal Agathayê li Emerîkaya Navîn, 142 kesan jiyana xwe ji dest da.
Li paytexta Guatemalayê Guatemala Cîtiyê navenda riyeke bajêr bi temamî rûxiya. Li dû bagerê li nawenda rê de kulikek mezin vebû. Rayedaran diyar kir ku li sedema vê hezazê vedikolin.

## Vîrosa Hicabê Li El Cezîre TV De Bû Sebebê Jidest Dana Pênc Pêşkêşvanên Wê



Pênc Pêşkêşvanên jin seba wê ku derheq şêweya li xwe kirina kincan diketne ber rexneyan, bihevre Elcezîre TV bi cih hêlan.
Li gorî rojnameya Heyat, jinên ku li wir kar dikirin, li jêr zexta herî zêde a rêveberiya Elcezîreyê de bûn. Yek ji endamên Desteya Nivîskarên Elcezîreyê di gotûbêja tevî nûçegihaniya Feransayê de da zanîn ku arîşeya wan tenê li ser şêweya lixwekirinê nebûye, belkî kêşeya pênc şeş salî berî niha ye. Yek ji hevalên wan di vî warî de ragihandiye ku rêveberiya Elcezîreyê daxwaz li wan kiribû ku xwe kêmtir bixemilînin.

## Hînkirina Muzîkê Li Xwendingehên Îranê De Hate Qedexekirin



Berpirsyarê navenda xwendegehên nedewletî li Îranê de, ragihand ku hînkirina muzîkê li xwendegehên di nav bazneya programên nefermî de qedexe ye.
Li gorî nûçeya mlpera BBC, Elî Baqirzade, berpirsê navenda Xwendegehên nedewletî li gotûbêjekê de ragihandiye ku hekî xwendegehek dewreyên hînkirina muzîkê birêve bibe, îmkana daxistina vê xwendegehê heye.
Li Îranê de pitir ji 16 hezar xwendegehên dewletî hene ku nêzî 1.127.000 qutabî û xwendekar ders û waneya muzîkê dixwînin.
Rêberê nîzama Îranê Elî Xamineyî, heyamekê berî niha ragihand ku muzîk bi vê şert û mercê serbest e ku tenê li xizmeta stranên şoreşvanî û her karekî din ê helal de be. Navbirî li dor avakirina Huneristaneke muzîkê ragihandiye ku hînkirina muzîkê û pêşvebirina wê ji bo ciwanan tevî siyasetên Komara Îslamiya Îranê yek nagrin.

**Sandî Taymz:**

## Jêrderyayiyên Îsraîlî Nêzî Îranê Bûn



Dewleta Îsraîlê jêrderyayiyên xwe li nêzî avên Kendawê cihgir dike.
Li gorî nivîsandina weşana Sandî Taymz: jêrderyayî a ku jêre dibêjin Dolfîn, ji aliyê dewleta Almanyayê ve bi nirxekî erzan bi Îsraîlê hatine firotin û karnasên leşkerî dibêjin ku wan jêrderyayiyan hêz û şiyana navikî ji bona lêdana derbeya duyemîn li hemberî êrîşên dijminan de hene.
Li gorî nivîsandina vê weşanê, ew biryar bona nîşandana dijkiryaran li hemerî êrîşên îhtimalî yên muşekî ji aliyê Sûriye, Îran û Hizbullahê hatiye girtin.
Efserekî hêza behrî a arteşa Îsraîlê ragihandiye ku ew jêrderyayî dikarin heya 1500 KM jî armancên xwe bipêkên.